

**Peyama pîrozbahiyê ya PDKÎ ji bo kongireya çarem ya Partiya Demokrat a Pêşvero ya Kurd li Sûriyê**

»»» R: 2






## Rêzdar Mesûd Barzanî bersiva peyama pîrozbahiya rêzdar Mistefa Hicrî da

»»» R: 3

*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (266) 21-11-2015 Buha (500) Tûmen*

**Gotûbêja tevî rejîma Îranê, take rêya çareseriya pirsa Kurd di Îranê de ye?**

»»» R:4



**Gelo daxistina sînoran geşeya aborî bi dû xwe re tîne?**

»»» R:5



**Tirkiye û berdewamiya şer**

»»» R:6



**Exter Fetahî:**

**"Mixabin bi sedema destengiyê, şeş zarokên min canê xwe ji dest dan".**

»»» R: 8



**20'ê Çiriya Paşîn roja cîhanî a pesendkirina mafê zarokan**

»»» R:9



## Rejîma Îranê di Sûriyê de jî, li dijî mafên mirovan e



**Kurdistan-media: Komîteya sêyem ya Civata Giştî a NY naskirî bi "Komîteya Mafên Mirovan" bi pejirandina biryarnameyekê derheq binpêkirina mafên mirovan di Îranê de, nîgeraniya xwe eşkere kir. Ew biryarname êvariya Pêncşemiyê bi 76 dengên "Belê", 55 dengên "Na", û 68 dengên bê alî hate pejirandin.**

Li gora nûçegihaniya "Associated Press", ew biryarname ji aliyê welatê Kanadayê ve hate pêşniyarkirin, û Amerîka û welatên Ewropayî ji wan welatan bûn, ku dengê "Belê" dane vê biryarnameyê.

Serbarê vê biryarnameyê, komîteya sêyemîn ya Civata Giştî a NY, biryarnameyeke din derheq binpêkirina mafên mirovan di Sûriyê de pejirandiye, ku tê de berpirsyariya can jidestdayîna xeyrî leşkeriyan xistiye stûyê rejîma Beşar Esed û bi awayekî eşkere û zelal, daxwaz ji Spaha Pasdaran û şibhê leşkeriyên Hizbullahê kiriye ku ji Sûriyê derkevin.

Li gora nûçegihaniya Royterz, ew biryarname ku Erebistanê bi alîkariya Qeter û hinek ji welatên Erebî, Amerîka û welatên Rojavayî amade kirin, bi dengê "belê" yê 115 welatan hate pejirandin.

Di vê civîna baskirî de, Ebdullah El-mu'elimî nûnerê Erebistanê di NY de, tevî îşarekirina bi qedera Alan Kurdî, zarokê sê salî ê Kobanê ku di nav avên Tirkiyê de, di dema ku dixwast here Ewropayê, canê xwe ji dest da, rû li welatên endam got: "Ez ji we dixwazim ku Alan bi tenê nehêlin, û cardin wî nekujin".

## Konseya Ewlekariyê biryara jinavbirina DAÎŞ'ê da



**Konseya Ewlekariyê ya NY roja Înê bi pejirandina biryarnameyekê bi dengê giştî daxwaz ji hemû welatan kir ku li dijî DAÎŞ'ê li Sûriyê û Îraqê şer bikin.**

Li gora nûçegihaniya Fransayê, di vê biryarnameyê de ku çend rojan piştî êrîşên terorîstî ên Parîsê, ji aliyê Fransayê ve kete ber bas, hatiye ku: DAÎŞ gefeke cîhanî li dijî aştî û ewlehiya navneteweyî ye.

Ew biryarnameya îzna bikaranîna hemû şêweyên şer, ji bo şerê li dijî DAÎŞ'ê dide,û ji welatên endam di NY dixwaze ku yên şiyan hene, hemû şiyana xwe li dijî DAÎŞ li Sûriye û Îraqê de bi kar bînin.

Biryarnameya baskirî, herwisa ji hemû welatan daxwazê dike ku hemû hewla xwe bidin pêşiya wan kesan bigrin, ku ji welatên din ve xwe digehînin DAÎŞ'ê, li Îraq û Sûriyê, û hewlê bidin ku çavkaniya pere û heyiya terorîzmê hişik bikin.

Her di vê derheqê de roja Pêncşemiyê Işton Karter wezîrê Parastinê yê Amerîkayê di hevpeyvîna bi MSNBC re ragehand ku: "Amerîka amade ye ku taktîka xwe di hemberî DAÎŞ'ê de biguherîne, taktîkek ku renge zêdetir wekî destêwerdana bejahiyê be".

## Sergotar

### Qopiya bê exlaqiyê

**Kerîm Perwîzî**

Metelokeke bîhaniyan heye, ku dibêje, hekî tu zêde li hêlûna dêw binêrî, wê deriyê dilê te ji bo dêw vebe!.

Di berbirûbûna digel hinek ji diyardeyan, û rikeberiya bi hinek dêwan re, hekî em hişyar nebin, hêdî hêdî emê jî edet û exlaqên dêwan bigrin!.
Em Kurd û xebatkarên dijî rejîma Îslamiya Îranê baş dizanin û ezmûneke yekcar zaf di vî warî de me heye, ku kiryarên kirêt û dijî mirovî ên rejîma Îranê ew qas derbe li riha mirovî û derûnî ya mirovên civakê daye, ku di nav civakê û di nava koma xebatkarên dijberî vê rejîmê jî, hezkirineke nexweş û nerewa derheq ducarîkirina kiryarên rejîmê hebûye. Kerb û bêzarî û hesta tolhildanê ew qas mêjiyê şoreşgeran jî dixe bin bandora xwe deku wan berdewan han dide (tûj dike) ku ew jî dest bo kiryarên wekî Komara Îslamiya Îranê bibin.
Di vê serdemê de ku piştî kirîza aborî ya cîhanî, wekî kirîzên aborî ên berê, bo mînak di serdema berî şerê cîhanî ê duyem de, bi sedema bêkariyê û kêmbûna çavkaniyên madî ên jiyanê, faşîzmê derfeta vegeşînê hebû, niha jî faşîzm bi rengekî din derketiye, û ya balkêş ew e ku faşîzm di çend eniyek cuda û li dijî hev de xwe nîşan dide, û li dijî faşîzmeke din serê xwe bilind dike. Rûçikê rastîn ê faşîzmê niha DAÎŞ e, ku çi wekî Sunî, yan wekî Şî’e, di herêma Rojhilata Navîn de hatûçûnê dike, û çi kiryareke dijî mirovî hebe, vê kiryarê encam dide.
Di hemberî gefxwarin û êrîşên rejîma Îranê, û DAÎŞ û girûpên tundrê ên faşîstî de, hêz û tevgerên xebatkar hene, ku bona mana mirovahiyê cangorîtiyê dikin.
Lê di vê navberê de ew tirs heye, ku ew girûpên xebatkar, di dema nerehetiyê de, hawara xwe bo kiryarên dijî mirovî ên faşîstî bibin, ku herçend derbê li faşîstên DAÎŞ û Wilayeta Feqîh bidin jî, lê di warê derûnî û exlaqî de, dîsan bi rengeke din û di rûçikeke din de, faşîzmeke din ava bikin.
Hekî DAÎŞ û Wilayeta Feqîh zarokan dikin armanca gulleyên xwe, û destdirêjiyê dikin ser van jinên ku di bin deshilata wan de ne, nabe aliyê din ê şoreşger jî vî karî bike.
Faşîzm kêfxweş dibe ku kar û kiryarên wê, di herêm û cîhanê de, mîna tov belav bibe, ew jî çi bi alîgiriya ji faşîzmê be, yan jî di bin navê dijberiya bi faşîzmê re.
Faşîzm li jêr navê DAÎŞ û Wilayeta Feqîh û xelafeta Îslamî û Tirkbûn û Erebbûn û pan Amerîkayî û Kurdî û Mesîhiyet û Yehûdê mezin û komonîzma cîhanî û li dijî netewe û di bin her maskekê de be, tenê yek berhem heye, ku ew jî kuştara mirovahiyê û jinavçûna dîrokê ye.

## Peyama pîrozbahiyê ya PDKÎ ji bo kongireya çarem ya Partiya Demokrat a Pêşvero ya Kurd li Sûriyê

**Kurdistanmedia: Defetra Siyasî ya PDKÎ di peyamekê de pîrozbahiya xwe bo kongireya çarem ya Partiya Demokrat a Pêşvero ya Kurd li Sûriyê ragehand.**

Deqa peyamê:

Bo Partiya Demokrat a Pêşvero ya Kurd li Sûriyê
Rêzdar serkirdayetiya Partiya Demokrat a Pêşvero ya Kurd li Sûriyê

Digel rêz û silavan, û herwisa pîrozbahiyan bi boneya birêveçûna kongireya çarem a partiya we, em hêvîdar in ku we kongireyeke baş û pirr nawerok û pirr deskevt hebe, hem ji bo we bixwe wekî endam û tekoşerên Partiya Demokrat a Pêşvero ya Kurd li Sûriyê û hem jî bo tewahiya gelê Kurd li Kurdistana Rojava.

Em wekî PDKÎ bi pêdagiriya li ser dostatî û nêzîkatiya çendîn salî bi we re, em gellekî kêfxweş in ku nûçeya birêveçûna serkevtiyane ya kongireya we bi taybetî li ser xaka Kurdistana Rojava dibihîsin û em çavnihêriya serkevtinên zêdetir bo we dikin. Em pêdagiriyê li ser dostatiyê dikin û rêz û hurmet ji bo kongireya we û biryar û encamên wê, û em hêvîdar in ku dostatî û nêzîkatiya me ji carên pêşîn jî qahîmtir be.

Hevalên rêzdar!




Her wekî hûn bixwe şareza ne û agehdarî pêvajoya bûyeran in, di herêma Rojhilata Navîn de, qonaxa niha ya demê, qonaxeke gellekî hestiya e ku her rêkxiraweke siyasî û her tevgereke xebatkarane, hewce ye bi ew qasê hişyarî û çavvekirîbûnê û herwisa bi riha fedakariyê û hestkirina bi berpirsiyariyê zêdetir pêngavan hilgire.

Bi taybetî li Rojava ku hûn wekî partiyeke xwedî ezmûn a xebatkar, li Kurdistana Rojav baştir ji hemiyan dizanin ku niha şereke bixwîn bi ser gelê Kurd li Rojav û hemû gelên Sûriyê de hatiye sepandin, lê bê guman piştî şer guherînkariyên gellek mezin di rê de ne, û erka li ser milên hemû aliyekî siyasî di vê beşê de ye ku bi hişyariyeke zêdetir ve û herwisa bi hestkirina bi berpirsayetiya neteweyî ya berfirehtir ve digel rewşê li hev bikin, jiber ku ew qonaxa niha wê pêşerojeke dûr û dirêj li ser bihê avakirin, û şaşiyeke biçûk jî hekî niha bihê kirin, wê heya demeke domdirêj wê xisarê bigehîne me, û di pêşerojê de nivşên piştî me, wê me rexne bikin.

Kurd di hemû parên Kurdistanê de û bitaybetî niha li Rojavaya Kurdistanê de, hewceyî bi yekgirtîbûn û hevdengî û dûrketina ji pêngavên yek alî û sepandina hijmûniyê heye û, bona vê erkê girîng jî gerek hemû rêkxistin alîkar bin û tenê bi aliyekî nahê encamdan, lê kes û aliyên weke we hewce ye ku rola navbeynkarî û komkirina hemû aliyan li devra pirogrameke hemaheng bilîzin, û Kurdan jî ji hevdu veqetiyanê derbaz bike.

Herweha niha êdî dema vê yekê hatiye ku li Rojavaya Kurdistanê bereya Kurdistanî bê avakirin û, hem bi pilatform û bernameya diyarîkirî pêngavan bavêjin û hem jî, daxwazên ronî û eşkere li hemberî nawendên deshilatdar û biryarder, we hebe û, hewil bê dayîn ku faktora girîngi ya Kurd bona ewlehî û cihgîrkirina aşayişa herêmê û dijatiya terorê, nehê erzanfiroşkirin, û bername û daxwaziyên ronî ên netewî hebe, jiber ku nifşên pêşerojê li şaşitiyên me nabihorin.

Em xatircem in ku dostên me ên Partiya Demokartîk a Pêşvro ya Kurd li Sûriyê, bi başî şarezayê tewahiya wan xalan in û wê van xalan li ber çav bigirin, û me tenê hewil daye ku wan xalan bînin bîra we.

Carekî din weke nîşandana kêfxweşiya xwe bi boneya kongireya we, ji niha ve em serkevtina kongireya we û pejirandina bernameya karên zêdetir û netewî, bo pêşeroja rekxiraweya we, bi hêvî dixwazin, û pîrozbahiyê li we dikin.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**09.11.2015**
**18.08.1394**

## Peyama pîrozbahiyê ya sekreterê giştî yê PDKÎ rêzdar Mistefa Hicrî bi boneya azadkirina Şingalê bo rêzdar Mes'ûd Barzanî

**Kurdistanmedia: Birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ di peyamekê de bi boneya azadkirina Şingalê pîrozbahî li rêzdar Mes'ûd Barzanî serokê Herêma Kurdistanê kir.**



**Deqa Peyamê:**

Rêzdar Mes'ûd Barzanî serokê Herêma Kurdistanê!

Nûçeya rizgarkirina Şingalê ji destên terorîstên DAÎŞ'ê bû sedema dilxweşiya hemû azadîxwazekê, bitaybetî neteweya Kurd. Em jî bi boneya vê serkevtina mezin ya hêza Pêşmerge bi fermandehiya we rêzdarî, pîrozbahiyê li we, xûşk û birayên Kurd ên Êzidî, gelê Kurd, hêza Pêşmerge ya Kurdistanê, û hemû wan hêz û aliyan dikin ku di vê serkevtina mezin de beşdar bûn.

Em sersaxiyê dibêjne malbatên pêşmergeyên şehîd ên şerê Şingalê û hêviya cebirîna birînên birîndarên vî şerî dikin.

Rizgarkirina Şingalê derbeke kûr û giran bû ku li laşê DAÎŞ'ê ket, û bêguman wê bandoreke zaf li ser lawazkirina morala wan terorîstan danê.

Lewra em çaverê dikin ku gellek nekêşe, ku em hemû aliyek di cejna serkevtina Hêza Pêşmerge bi ser DAÎŞ'ê, û rizgarkirina hemû xaka Kurdistanê ji destên terorîstan de beşdar bin.

**PDKÎ**
**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**
**14.11.2015**

## Bersiva Mes'ûd Barzanî serokê Herêma Kurdistanê bo Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ

**Kurdistanmedia: Serokê Herêma Kurdistanê Mes'ûd Barzanî di peyamekê de bersiva Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ derheq azadkirina Şingalê da.**



**Deqa peyamê:**

Rêzdar Mistefa Hicrî, sekreterê giştî yê PDKÎ
Silav û rêz!

Digel spasiyan ji bo we, nameya we rêzdarî bi boneya serkevtina operasiyona Şingalê gihîşte destên me.

Gellek spas bo hesta we rêzdarî. Bê guman hêza pêşmergê Kurdistanê bi azadkirina Şingalê û hemû herêmên din jî, cesûrî û destaneke bê mînak nivîsandin, û niha navê pêşmerge di hemû cîhanê de, bûye remza cesûrî û camêriyê.

Bi piştevaniya xwedê û hêza pêşmerge, û gelê Kurdistanê, dawî têkçûna terorîstan bi destên pêşmerge dibe.

Hûn jî her şad û serkevtî bin.

**Mes'ûd Barzanî**
**Serokê Herêma Kurdistanê**
**16.11.2015**

## Peyama hevderdiya Birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ bo Franswa Oland serkomarê Fransayê



**Kurdistanmedia: Rêzdar Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ peyameke sersaxiyê derheq bûyerên Parîsê, ji serkomarê Fransayê re şand ku eva jêr deqa vê peyamê ye:**

**Rêzdar serkomar!**

**Di vê dema dijwar de, ez îznê didim xwe ku bi şandina peyamekê li ser navê PDKÎ, tevî hevderdîkirina digel we, sersaxiyê bêjme we, û ji riya we ve jî bêjme hemû xelkê Fransayê, ku di şeva 13.11.2015'an de, li parîsê ketin ber êrîşa terorîstî û hovane.**

**Ew êrîşên hovane di rastî de, cînayet li dijî mirovahiyê ne, û li dijî buha û nirxên cîhanî ên wekî aştî û azadiyê ne, ku Fransa yek ji wan welatan e ku parêzerê wan nirxa ye. Em vê cînayeta li dijî mirovahiyê bi tundî şermezar dikin, û pêdagiriyê dikin li ser hevbendiya rastbêjane û sadiqane ya xwe digel xelkê Fransayê li dijî hovîtî û terorîzmê. Kerema xwe silavên sadiqane ên min qebûl bikin.**

**Mistefa Hicrî**
**14.11.2015**

# Gotûbêja tevî rejîma Îranê, take rêya çareseriya pirsa Kurd di Îranê de ye?



**Cemal Resûl Dinxê**

Dîroka xebata gelên bindest di çend sedsalên derbazbûyî de, ji boy xweserî û rizgariya netewî bûye, û di vê pêxemê de jî û bona bidestxistina vê armancê, takên civakê di çarçêveya tevger yan partiyên curbicur de, siyaset û helwêstên cuda de çalakiyan dikin. Her dîtingeh, mekteb, partî, girûp û ....hwd, weke îcbareke dîrokî di ser 3 qonaxan re derbaz dibe.

Ya yekem hizra damezirandina partî û rêkxistinê, ya duyemîn piropagande bo partiyê û komkirina endam û alîgiran bona gehîştin bi armanc û mebest û ya sêyemîn gehîştina bi armancê ye.

Qonaxa yekemîn, beşa herî lawaz ya partiyê ye, qonaxa duhemîn xebat û zehmetiya herî zêde hewce ye da ku bikarî bigehî bi ewqasê xwe û rêkxistina endam û takên nava partiyê, û qonaxa sêyemîn gehîtina bi armancê ye ku rêyek dûr û dirêj hewce ye bona vê ku di dawiyê de û di dema gehîştin bi ewqasê xwe, xwe nedorîne û yan jî berevajî, di dema lewaziya partiyê de xwe nedorîne. Eva xala herî girîng bona diyarîkirina keseke şoreşvan e!!!

Em gerek vê yekê ji bîr nekin ku dîrok ducarîbûna bûyerên cîhanê ye di şiklên curbicur û bi rêberiya kesên curbicur.

Di dîroka siyasî ya cîhanê de rêkxistinên wusa hebûne ku di despêkê de zêde girîngî di nava civaka xwe de hebûne, û piştre dema ku gehîştin armancên xwe û yan jî beravajî negehîştinê, di kakil de poç bûne û ji rêya rast derketine û yan jî hatine hiloşandin. Di Îranê de jî me mînaka partiyên weha hebûne.

Di vir de basa me ev e ku dîroka siyasî ya Îranê, pir e ji ewraz û nişîvên siyasî û di vê derheqê de bi dehan partî û girûp hatine û çûne û herweha hinek jî tenê dî rûpelên dîrokê de mane. Hekî em zor venegrin dîrokê û tenê ji sala 1300 a Rojî(1921) şûnde dest pê bikin, heya niha çendîn partî bi merema guherînkariyê siyasî di Îranê de hatine vekirin û pişt re jinav çûne, û her yek ji wan partiyan jî li gorî nêrîna xwe û siyaseta xwe bas ji mijara netewî û yek ji wan netewa Kurd kirine, û gellek caran jî bi qasê serê Derziyekê û tenanet kêmtir jî mafek jê re diyarî kirine. Lê di vîr de xala werçerxan û guherînkariyê dest pê dike, ew jî şoreşa sala 1357'an a Rojî(1979) li dijî deshilata Pehlewî dest pê kir û gelên Îranê karîn ku bigehin hêvî û daxwazên xwe, lê şoreşa bi vî qasî mezin ku cîhan jê heyirî, gellek zû bi





talan çû û hejmarek "Axûnd" di bin navê dadperwerî û wekhevî, dîktatorî bo xelkê Îranê bi diyarî anîn û niha jî bereketên vê diyariyê bi ser xelkê de dibarê. Heyamekî kêm piştî şoreşê, rûçika rastîn ya deshilata Axûndan bo xelkê desrket û dest avêtin xebata li li dijî vê rejîmê û heya niha jî xebata wan negehîştiye tu encamekê lê her berdewam e.

Ji mijara xwe dûr nekevin, netewa Kurd ku her weke berê di warê neteweyî û siyasî de hişyar bûye, piştî vê ku di danûstanên tevî Xumeynî negehiştin tu encamekê û rejîma Xumeynî êriş anî ser Kurdistanê, Kurd jî dest avêt xebata çekdarî di çarçoveya sîstema hizbî de û li serveyî hemûyan Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê (PDKÎ) weke alahilgirê vê xebatê, bûye pêşrevê xelkê Kurdistana Îranê.

Ji wî demî ve ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê xebata xwe ya eşkere dest pê kir û li li dijî Axûndan berxwe da, êdî ji Kurdan weke dujminê deshilata nawendî hate nêrîn, jiber ku daxwaza mafê qederê bikin, ne mafê ziman û nivîsandinê ku niha jî hinek alî û kesatiyên siyasî, mafê gelê Kurd di Kurdistana Rojhilatê de, tenê di "Xwendin û nivîsandina bi zimanê Kurdî" dibînin.

Partiyeke siyasî di her ciheke cîhanê de be, kakila xebata vê guherîna siyasî ya hikûmetê ye bi awayê çekdarî û yan jî bê çek. Lê piraniya wan partiyên ku li li dijî deshilatên serberedayî xebat meşandine û bona berevaniya ji xwe li hemberê êrîşên deshilatdaran çek hilgirtine, eva hikûmet bûye ku ev şêwaza xebatê bi ser de sepandine.

Lê hekî em bi rindî ji rejîma Komara Îslamî binêrin, dibînin ku tenê ji zimanê çek û Gopalê tê digîje, lewra PDKÎ ya çekdar, heya gehîştona bi armancên xwe, çekê xwe bêdeng nake.

Di vê navberê de gellek alî û kesayetiyên siyasî hene, ku piştî bi salan berxwedan û xebatê gihîştine vê encamê, ku tenê riya çareseriya kêşeya Kurd li Kurdistana Rojhilat de gotûbêja digel rejîma Îranê ye!!! Di yekem lênêrînê de, dorandineke siyasî bi vê axivtinê ve diyare.

Bona qisekirina li ser vê cure dîtingehê, dibe ku em bêjin ku xwediyên vê şêwe ji bîrkirinê û vê şêwe ji gotarê, berbirûyê sergêjiya siyasî bûne, û bi wateyeke din berbirûyê bêhêvîtiyê bûne, yan jî di yek gotinê de, "Îflasa siyasî" qeware û hêza wê dagirtiye, û derfeta çalakiyan ji wan biriye, û nebûna bîreke rast û dirust ew tengav kirine.

Baseke din ew e ku bi vê gotarê, ku "gotûbêj" digel rejîma Îranê dawiyê bi kêşeya Kurd tîne, û riya çareseriyeke mentiqî û eqlanî ye, dibe bi vî rengî bersivê em bidin ku hekî rejîmê bawerî bi gotûbêjê hebûya, xwe gellek mêjve bû ku mafên Kurdan dabû, yan jî divêt bo rastiya vê gotinê dibe em bêjin ku hekî vê rejîmê eqliyeta qisekirin û gotûbêjê hebûya, piştî 12 salan gotûbêjên navkî nedigihîşte astekê, ku hemû cîhan dorpêçên aborî bixe ser, û hikûmeta wê di bê îmkaniyê de ji hiloşînê nêzîk bibe, û wê demê ew serî bo danûstandinan bitewîne.

Di vê derheqê de aliyekî siyasî ku dibêje gotûbêja digel rejîma Îranê tenê riya çareseriya kêşeya Kurd yan Kurdistana Rojhilat e, hekî hêza leşkerî ya Amerîka jî li piştê be, jiber ku bîrokeya wê şaş e, û hêla jî Komara Îslamî nas nekiriye, û çavkaniya kêşeyan nedîtiye, encama wê her dorandine.

Wî kesî yan wî aliyê siyasî, hêla rejîma Îranê bi başî nas nekiriye, û hewce ye ku di hizra xwe de guherînkariyan pêk bîne, û baştir rejîma Îranê nas bike.

Ew kes û aliyên siyasî ku "gotûbêjê" wekî tenê riya çareseriyê dizanin, û dibêjin ku tenê riya çareseriya kêşeya Kurd, gotûbêja digel Komara Îslamiya Îranê ye, dikare çend sedemên wê hebin: 1-Nebûna siyaseteke rohn di hemberî rejîma Îranê de, û her rojê sazlêdanek 2-Bêhêvîtî û sergêjiya siyasî 3-Nebûna stratejiyeke rohn bo şerê digel rejîma Îranê 4-Hewldan bo çewtekariya xebata hemû partiyên Kurdistana Rojhilat 5-Tênegihîştin ji siyaset û helwest û daxwaziyên Kurdên Rojhilat û nenasîna dost û dijminan.

# Gelo daxistina sînoran geşeya aborî bi dû xwe re tîne?



Arif Vêlzî

Du fakterên serekî ên rî girtina ji dije şoreş û cudahî xwazan (Hêzên Azadîxwaz) û rêgirtina ji qaçaxa "Erz", bi dirêjahiya temenê Komara Îslamî ya Îranê salane ji rêya fermande û biryarderên hêzên çekdar ên weke Spaha Pasdaran û arteş ê hêza Întizamî û ... hwd tê ducarî kirin û hevdem her du fakter jî kirine hincet bona vê ku bi dirêjahiya sînorên Rojhilat û Rojava û Bakûrê Rojava û Başûrê Îranê, wate Sîstan û Belûçistan û herêmên Ereb akincî û li serweyî hemûyan çar parêzgehên Kurdistanî Îlam û Kirmaşan û Sine û Urmiye, di çarçoveya pirojeya bi rûçik vegeşandina Kurdistanê, lê di rastî de armancên siyasî û ewlehî, bi tewahî bê milîtarîze kirin û bi sedan û bigire bi hezaran Pasiga û Payga mozelanên mezin û biçûk a hêzên sîxorî û çekdarên xwe bişîne nava Kurdistan û cuxrafiya netewên din ên Îranê, û herweha salane ji aliyê binav parlemênta Îranê ve jî, bûdceyek mezin û xeyalî ji wan re tê terxankirin.

Hewla kontrolkirina tewahiya sînorên Kurdistanê, yek ji erkên Hêza Întizamî ya Komara Îslamî bûye, lê Sipaha Pasdaran bi piştevaniya "Welî yê Feqîh" dest bi ser hemû welatê Îranê de gitiye û bi lêdana cadeyên qîr bohemû çiya û dol û deştên Kurdistanê, çandina mînan li ser sînoran, avakirina Hend û Pasga û Payga û borcekên nobedariyê ên curbicur, damezirandina sîstema wêne hilgirtinê li ser sînoran, lêdana dîvar, lêdana xendeqên Curbicur, têrdilî û alawên elektronîkî û gelek şêweyên din, hewla girêdan û daxistina sînoran daye daku, bi gotina wan fetwaya Xumeynî û Xamineyî ku têde bas ji ewlehiya herêmên sînorî dike ji nifûza kesên ser bi bîhaniyan dike, bicih bigehînib.

Di gotina herî taze ya karbidestên Komara Îslamî di vê derheqê de, Fermandeyê sipaha "Bêyt El-Muqedes" a parêzgeha Sinê serdar Mihemedhusên Recebî ragehand ku, geşeya Kurdistanê girêday ye bi daxistina sînoran û cihgîrbûna ewlehî û tenahiya Kurdistanê. Yan Eva ku Îsma'îl Ehmedî Muqedem Fermandeyê giştî ya Hêza Întizamî dibêje ku "Gelaleya daxistina Sînoran gelaleyek gişî ye û heya 35 salên dahatî de, tewahiya sînorên seranserî Îranê wê bên kontrolkirin û tenê çend derwazeyên sînorî bona hatin û çûyinê wê bimînin, bo mînak eva ku li parêzgeha Urmiyê hatiye cîbicî kirin, di rastî de serkevtî jî bûey û me kariye ku asta ewlehiya wê parêzgehê bigehînin ew qasê xwe".

Xûyaye eva ku me di çend peyvên serî de bas kirin, tenê rûçika dereve ya vê pêvajûyê ye ku Komara Îslamî pitir ji 3 dehikan e ku hewlê jê re dide û pereyek zaf di pêxemê de xisar dike, jiber ku eva tenî siloganek bê bingeh û direveke mezin e.

Di rastî de sedema sereke ya têkdana ewlehî û tenahiya Kurdistanê, hêzên çekdar ên Komara Îslamî û li serveyî hemûya wezareta Îtila'at û Sipaha Pasdaran bi xwe ne ku, bi avakirina yekîne û torên curbicur ên sîxorî û çetetiyê, ji rêya curên Besîc û xelkê xweciyî ên xapandî ve, hewla jinavbirina çanda yekgirtîbûna gelê Kurd û bi giştî nehêlana mitimane û baweriyê di nava gund û herêmên sînorî ên Kurdistanê de dide. Eva ku em di piraniya gund û herêmên sînorî de dibînin ku çêkirina fitne û şerê duberekî û şerê tayîfî di navbera malbat û eşîran û herweha



sîxorî pê kirina wan li ser hevdu, jiyana rojê û asayî ya xelkê Kurdistanê tal kirine û xelk ji pêşeroja xwe ya lêl û nediyar nîgeran in. Ya eva ku di bajarên mezin de jî bi sedama vê ku Spaha Pasdaran dest bi ser hemû demarên sereke ên deshilata siyasî û îdarî û aboriya welat de girtine û tenanet hewla avakirina leşkirê taybet bo hemû parêzgehan dide, gendeliya îdarî û ferq û cudahiya regezî û netewî gihîştiye ew qasê xwe, bi awayekî ku di hemû qonaxên sereke ên jiyana rojane ya xelkê Kurdistanê reng vedaye û rêgir e ji vê ku çerxa jiyanê rêya xwe ya asayî bipîve.

Ji alieyke din ve daxistina sînoran ne tenê nabe sedema peydabûna derfetên kar û geşeya aborî û ferhengî û civakî ya Kurdistanê, belkî bi daxistina sînoran, take rêya peydakirina nanê rojê yê xelkê hejar û desteng ê Kurdistanê ku heman karê pir ji tehlûke yê kolberiyê ye, digire. Xûya ye ku teqeya rasterast û kuştina kolberan ku em bi rojane li ser sînorên Kurdistanê tevî berbirû ne, bi xwe xwediyê êş û elemek din e.

Helbet hewceyî basê ye ku deng û bas a daxistina sînorên Rojava û Bakûrê Rojava ya Îranê, piştî tevgera hêzên pêşmerge yên Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê bo ser sînoran û kurahiya axa Kurdistanê ber bi zêdebûnê ve çû ye.

**Daxistina sînoran ne tenê nabe sedema peydabûna derfetên kar û geşeya aborî û ferhengî û civakî ya Kurdistanê, belkî bi daxistina sînoran, take rêya peydakirina nanê rojê yê xelkê hejar û desteng ê Kurdistanê ku heman karê pir ji tehlûke yê kolberiyê ye, digire.**

Ev tevgera hêza pêşmerge yê Kurdistanê selimand ku, tewahiya ew zehmet û xeric û pîlanên ku Komara Îslamî bikar tîne, di rastî de bersiva erênî nadin û armancên xwe nahingivin. Jiber ku gelê Kurd di Kurdistan Rojhilatê de, her di despêka serkevtina şoreşa gelên Îranê de, rêya xwe ji rêya Komara Îslamî veqetand û bi retkirina sîstema Komara Îslamî û "Wîlayeta Feqîh" û bi pişt qahîmiya bi hêza xwe, basikên xwe ji xebatê hildan li dijî sîstema daxistî û serberdayî ya rejîmê û, niha jî piştî derbazbûna çar dehikan, hêj her pêdagir e li ser xebata xwe û bi xatircemî ve heya gehîştin bi rizgariya yekcarî, destan ji vê xebatê bernade.

# Hîlarî Kilînton: Em nikarin rejîma Îranê û DAÎŞ'ê wek du arîşeyên cuda ji hev bibînin

Kurdistanmedia: Hîlarî Kilînton di gotinên xwe de got ku DAÎŞ û rejîma Îranê du arîşeyên ji hev cuda nînin, û em nikarin rejîma Îranê û DAÎŞ wek du arîşeyên cuda ji hev bibînin.

Li gor nûçegehaniyên navnetewî, Hîlarî Kilînton berbijêra Demokratan a hilbijartina serkomariyê di gotinên xwe de di şêvra pêwendiyên derve ên Amerîka di warê rêyên çareseriyê bo xebat li dijî DAÎŞ'ê got, kiryarên rejîma Îranê bûye sedem ku welatê Erebistanê bala xwe ji Sûriyê bo welatê Yemenê biguherîne.

Kilînton di dirêjiya gotinên xwe de di warê siyasetên rejîma Îranê di Sûriyê de got: "Rejîma Îranê dibe vê rastiyê bizane, ku piştevanî ji welatekî dîktator û şerker, nabe sedema aramiyê", û herwisa got ku siyaseta îro derfetê dide Sûriyan ku dawiyê bi hikûmeta Beşar Esed bîne.

Siyasetên deverê pir aloz bûne, û niha welatên cîhanê li ser rêyên din tekez dikin, û tekezkirna rejîma Îranê li ser piştevanîkirin ji Beşar Esed serkomarê Sûriyê, û siyasetên Rûsiyê di wî welatî de, welatên Rojavayî li ser du rêyan danîne.





**Şehab Xalidî**

# Tirkiye û berdewamiya şer

Piştî derbeya leşkerî ya 12'ê Îlona 1980'î ji aliyê jeneralan ve yasayeke bingehîn bi ser gelên Tirkiyê de hate sepandin, û li ser bingeha vê yasaya bingehîn, çendîn salî siyaseta înkar û asîmîlekirinê bi rê ve çû, lê bi xweşî ve piştî çendîn salî girtin û îşkence û terora azadîxwazên Kurd û Tirkên azadîxwaz di vî welatî de, rapirsiyeke giştî li ser guherîna vê yasayê bi rê ve çû, ku piraniya xelkê vî welatî dengê xwe dane reforman di yasaya bingehîn de.

Di rastî de dengdana piraniya xelkê Tirkiyê bi pêkanîna reforman di yasaya bingehîn de, nîşaneya bêzariya xelkê vî welatî ji ferq û cudahîdanîn û şer û tundûtîjiyê ye. Lê karnasên siyasî li ser vê baweriyê ne ku armanca AKP ji hewldana bo pêkanîna reforman ne ew e ku mafê hem pêkhateyên mesebî û neteweyî di Tirkiyê de berçav bigre, belkû armanc ew e ku deshilata leşkeriyan kêm bike, û sîstema serokatiyê jî di yasya bingehîn de cihgir bike.

Herçend ku bo cihgirkirina sîstema serokatiyê, hewcehî bi alîkarî û piştevaniya partiyên din heye, ku partiyên din jî di hemberî qebûlkirina sîstema serokatiyê de bêguman wê daxwaza poanan bikin, bo mînak HDP'ê her ji niha ve ragehandiye ku dibe ew mafê Kurdan bidin û piştre emê sîstema serokatiyê qebûl bikin. Lê AKP ragehand ku em danûstandinan li ser vê yekê nakin, û tu qewlan nadin HDP'ê. Bêguman ew yek zengeke metirsîdar e, ku AKP xwe bêminet nîşan bide, û amade nebe ku tu poanan bide HDP'ê.

Ji aliyekî din ve cuda ji pirsa serokatiyê, hemû hewla Kurdan ew e ku digel reformên destûrî di berjewendiya Kurdan û mafên wan de, dibe gellek guherînkarî û reform di yasaya bingehîn de çêbin, û yek ji sedemên ku bêbawerî bi AKP derheq piroseya çareseriyê de çêbû, ew bû ku di vê heyamê de tu bendeke yasaya bingehîn di berjewendiya Kurdan û mafên wan de guherîn bi ser de nehat, û piştre jî pirsa şerê Kobanê bi ser de hat, û helwesta Tirkiyê di vê derheqê de baş nebû, û Erdoxan çend caran bi xwe got ku : "Kobanê wê bikeve", û alozî li dijî vê hewlesta Erdoxan çêbûn, û çendîn kes ji meşvanên Kurd bi gulleyên polîsan hatin kuştin, û piştre çend teqîn di nav meşên Kurdan de çêbûn, wekî



teqîna di Amedê de, û teqîna Sirûçê, û ya Amedê ku şik û gumana Kurdan û bi Tybetî HDP û PKK li ser AKP û DAÎŞ'ê bûn, û kuştina polîsan ji aliyê PKK ve, bûne sedema vê ku piroseya çareseriyê ji nav here, û cihê xwe bide şer û pevçûnan. Ew şerê ku niha jî berdewam e, û rojane cuda ji gerîlayan û leşkerên Tirk, hevwelatiyên sivîl ên Kurd dibin gorî.

Niha AKP ku di hilbijartina pêşwext de kariye dengên hewce bo pêkanîna hikûmetê pêk bîne, Erdoxan navê "piroseya çareseriyê" guheriye bo piroseya "Piroseya yekîtî û biratiya niştimanî", û ragehandiye ku ji niha şûnda berdengê me PKK û HDP nînin, belkû pêkhateyên din ên Kurdan in. Helbet Erdoxan digel wan jî pirsa Kurd behs û gengeşe nake, jiber ku wî heya niha çendîn carî ragehandiye ku pirsa Kurd hatiye çareserkirin û kêşeyeke bi nave kêşeya Kurd di Tirkiyê de tuneye. Lewra ewê tenê li ser çekberdana PKK û xwe radestkiirna endamên wan, û li ser lihevnêzîkbûn û biratiyê û cihgirkirina aştiyê wê nîqaşan bikin.

Bêguman her ji niha ve diyar e ku PKK dev ji çekan bernade, jiber ku tu baweriyekê bi AKP nake,û ji aliyekî din ve jî hewce ye ku AKP hem HDP û PKK û Ocalan, û hem jî partiyên din wekî PSK, û HAK- PAR wekî berdengê xwe bibîne, û bi hemiyan re bikeve nav gotûbêjan de. Jiber ku qebûlnekirina Ocalan û PKK û HDP wekî berdeng ji bo çareserkirina kêşeyan, tu carî encama wê tunabe, û ne tenê aştî cihgir nabe, belkû wê şer roj bi rojê kûrtir û sekinandina wê jî wê dijwartir be, û di berdewamiya şer de, eva neteweya Kurd di vê para Kurdistanê de ye ku wê bibe qurbanî, û nagîje tu yek ji xwestekên xwe yên

**Bêguman her ji niha ve diyar e ku PKK dev ji çekan bernade, jiber ku tu baweriyekê bi AKP nake,û ji aliyekî din ve jî hewce ye ku AKP hem HDP û PKK û Ocalan, û hem jî partiyên din wekî PSK, û HAK-PAR wekî berdengê xwe bibîne, û bi hemiyan re bikeve nav gotûbêjan de**

herî destpêkî ên neteweyî jî.

Jiber ku tenê riya cihgirbûna ewlehiyê ew e ku her du alî agirbesê ragehînin, ne eva ku tenê yekalî PKK ragire, û di qonaxa duyem de jî xeynî HDP û Ocelan û PKK, hewce ye ku dewlet pêkhate û partiyên din jî wekî berdeng ji bo çareseriya pirsa Kurd qebûl bike, (dibe Erdoxan û AKP qebûl bikin ku pirsa Kurd heye, û dibe ew bihê çareserkirin), û piştre jî ya girîng ew e ku di yasaya bingehîn de, girîngî bi Kurdan û pêkhateyên din jî bê dayîn, bo mînak destewajeya "hemwelatiyê Turk" destewajeyeke tewaw nejadperestane û pirr ji ferq û cudahîdanîn e, û hewce ye ku guherîn bi ser de bihê, ji ber ku hemû xelkê ku di Tirkiyê de dijîn, ne Tirk in.

Xeynî van xalên girîng tu encamek ji hewildanan dest nakeve, û aştî û aramî cihgir nabe, û tenê xortên Kurd û Tirk wê bibin goriyê siyasetên şaş.

Em hêvîdar in ku hem PKK û hem AKP bêne ser vê baweriyê ku bi siyaset şer û înkarê nagihîjin tu encaman, û piştî van hemû kuşt û kuştaran û malwêraniyan neçar dibin ku rojekê bêne ser maseya gotûbêjan û hewlê bo çareseriyê bidin, lewra ya baş ew e ku her ji niha ve dest pê bikin.

# Nerîna Lîderan



Barzanî: **“Axa Kurdistanê ne cihê milîşên şî’e ye”.**



Mikhail Bogdanov: **“Jinên kurd qehreman in”.**



François Hollande: **“Xwastin toleransa li Fransayê ji nav bibin”.**



Joe Biden: **“Emê piştgîrî bidin pêşmerge”.**

## Mihemed Nezerî: “Eva 22 sal in ku min serê xwe li hember tu kesî netewandiye”

Ajansa Kurdpa: Mihemed Nezerî girtiyê siyasî ê Kurd ku di girtîgeha “Recayî Şehr” a bajarê Kerecê de binçav e, di nameyekê de bo serokê dadgeha dadweriya Îranê de, bas ji binpêkirina berdewam a mafên xwe di girtîgehê de dike.

Li gorî rapora ku gehiştî destê Ajansa Nûçegehaniya Kurdpayê, Mihemed Nezerî ku eva 22 sal e di girtîgeha Recayî Şehr ya Kerecê de ye, di nameyekî de bo “Elî Larîcanî” serokê Dezgeha Dadweriya Îranê, radigehîne ku, “Çavên Periya (firişteya) Îdaletê ne kor in, belkî eva hûn in ku bi navê dadperweriyê, dadperweriyê binpê dikin, û we Periya Îdaletê şemezarê xwe kiriye”.

Di nameya navbirî de hatiye ku, Rûhanî Dezgeha Dadweriyê bi “xwêyekê fasidbûyî” dişibhîne, ku bê deshilat e û Karên dadgehê li ser bingeha rasipartinan têne encam dan. Lê di hember de Dezgeha Dadweriyê tu dijkiryarek ji xwe nîşan nedaye û hinek mijar xistine ber bas ku bixwe jî baweriya wan pê tuneye.

Navbirî Dezgeha Dadweriyê bi xweser dide zanîn û radigehîne ku li jêr zext û givaş a tu binyateke din de, karê xwe bi rê ve nabe. Lê xwezîka wî di cihê gotinên ne rast derheq bi Dezgeha Dadweriyê de, hinek rastî eşkere kiriban, da ku hemû kesek bizanibe ku Dezgeha Dadweriyê, dezgehek dest û pê girêdayî ye, û piraniya biryarên xwe di bin fermana kes û aliyên din de dide. Xwezîka wî digot ku li dor tometbarên ewlehî û siyasî de min tu deshilatek nine û di bin fermana “Wezareta Îtila’at”ê ye. Navbirî di dawiya nameya xwe de dibêje ku, ez di dawiyê de pêşniyarê bi we dikim ku di demeke zû de navê “Dezgeha Dadwerî (Qowêyê Qezayiyê) bo “Dezgeha Xezayî” (Qowêyê Xezayî) biguherîne, da ku xelik bizanibin ku di vê dukanê de tu pereyekê nedin, jiber ku tu xwarinek (Xeza) nine û hekî bixwazin tiştekî bi dest bixin, gerek nirxa wê bidin.

Eva di demekê de ye ku li gorî rapora “Radyo Zemane”yê ji ziman Mihemed Nezerî ve hatiye ku, navbirî keysa xwe bo “Komisyonê Efw we Bexşendigiyê” (Komîsiyona Lêborînê) şandiye, lê piştî çend heyvan, hêj tu bersivek nehatiye dan, û ne diyar e ku wê serbest bê berdan, an ne.

Navbirî di hevpeyvîna xwe tevî “Radyo ya Zemane” radigehîne ku, “Ez şanaziyê bi morala xwe dikim, ji ber ku piştî 22 salan, hêj bona serdana derveyî girtîgehê(Murexesî) û tenanet serbestberdanê jî, serê xwe li hember tu kesî netewanidye. Ez alîgirekî sade yê PDKÎ me, û wê bimînim jî û şanaziyê jî pêve dikim”.

Navbirî derheq bi morala xwe di girtîgehê de dibêje ku, “PDKÎ bo min pîro ze. Hurmet û rêz a vê partiyê û armanên wê yên pîroz û wan hemû xortan ku bo azadiya Kurd û Kurdistanê di vê rêyê de canê xwe gorî kirine, bo min bûne moralek mezin,




da ku ez piştî derbazkirina 22 sal hepsê, hêj her berxwe bidim”. Mihemed Nezerî xelkê bajarê “Sayînqela” ya Kurdistana Rojhilat e ku roja

9’ê Xermanan a sala 1373’an(1994), ji aliyê Spaha Ebûzer ya Komara Îslamî li bajarê Bokanê hatiye binçavkirin.

Navbirî bi tometa “Alîgirî û piropaganda ya bo partiyên Kurd ên opozisyona hikûmeta Îslamî ya Îranê” hate binçavkirin û di dadgeha bê parêzer, bi serokatiya dadwer Celîlzade serokê dadgeha Şoreş ya Bajarê Urmiyê, bi cezaya bidarvekirinê hate mehkûmkirin.

Cezaya Mihemed Nezerî piştre û di sala 1378’an(1999) bi pileyek xatirgirtinê bo girtîgeha heta hetayî hate kêmkirin, û navbirî heya niha jî di girtîgeha Recayî Şehr ya bajarê Kerecê de binçav e.

## Leyla Zana bi Kurdî sonda yasayî xwar

**Ajansa Kurdpa: Leyla Zana parlemantara Kurd a nûnera Agiriyê li parlementoya Tirkiyê de bi sondxwarina bi zimanê Kurdî di parlementoya Tirkiyê de, berbirûyê rexneyên nejadperestan bû.**

Li gora nûçeyên ku belav bûne Leyla Zana parlementera Kurd berî vê ku dest bi sonxwarinê bike got: “Bi hêviya aştiyeke birûmet û mayînde.” Piştre dest bi sondxwarina xwe ya bi Kurdî kir. Herçend ku piştî sondxwarina wê, daxwaz jê hate kirin ku bi zimanê Tirkî jî sonda yasayî bixwe, lê wê qebûl nekir. Vê kiryara Leyla Zana deng û hawara hinek ji parlementarên Tirk bilind kir, û wan Leyla Zana bi binpêkirina peyrewa navxwe ya parlementoyê û binpêkirina yasaya bingehîn ya Tirkiyê tometbar kirin.

Her di vê derheqê de xaleke girîng ew bû ku Leyla Zana destewajeya “hevwelatiyên Tirkiyê”, di cihê destewajeya “Hevwelatiyê Tirk” de bi kar anî, ku di yasaya bingehîn de hemû hevwelatiyên ku di Tirkiyê de dijîn wekî Tirk hatine hesabkirin.

Hêjayî basê ye ku nûnerê Amerîkayê jî di vê rûniştina parlementoya Tirkiyê de amade bibû, lê ragehadiye ku bi sedema vê ku bi awayekî baş karê wergeranê jê re nehatiye kirin û ew ji Leyla Zana tênegihîştiye, nikare tu tiştekî li ser bi Kurdî axivtina wê bike.

Leyla Zana yekem car di sala 1991’an de, di parlementoya Tirkiyê de bi



Kurdî qise kir, û di encam de cezaya 15 sal girtîgehê ji wê re hate birîn, û pênc hevalên wê jî bi cezayên cur bi cur hatin mehkûmkirin.

## Exter Fetahî:
## “Mixabin bi sedema destengiyê, şeş zarokên min canê xwe ji dest dan”.

**H: Arif Vêlzî**



Hejarî û destegnî, hekî pêsîra mirov bigire, wî çaxî mirov dizane ku çiqas birînên kûr di jiyan û derûn însanan de çê dike, wî çaxî mirov dizane ku jiyan çi qas tal e û çi qas giraniyê dixe ser milê mirov, birîn û talî û giraniyek ku hekî mirov xwedî baweriyeke qahîm û dilek mezin nebe, renge pêvajoya jiyana asayî bê guhertin û jiyan ber bi aqarek ne asayî ve here.

Lê hekî bawerî bi xwe bûn û bawerî bi jiyanê hebûn di mirov de hebe, wî çaxî wê bi ser destengî û hejariyê de zal be û, serbarê destengiyê wê bi dilek dewlemd ve jiyana xwe bidomîne.

Exter Fetahî yek ji wan mirova ne ku, di piraniya jiyana xwe de û bi taybetî di despêka tevlîbûna tevî refên şoreşê de, hejarî û destengiyê pêsira jiyana wan girtiye û bernedaye, giraniya barê destengiyê bi qasekî bandora xirab xistiye ser jiyana wê ku, 6 zarokên wê bi sedema nesaxî û hejariyê canê xwe ji dest dane û tenê zarokek wî maye. Lê hêj bi hevî ye û bi dilek mezin û bi xweşî tevî hevjî û kurê xwe jiyanê didomîne.

Exter Fetahî keça Qutbedîn Fetahî, roja 1ê Pûşpera sala 1954’an(1333)li gundê “Derehecîc” a ser bi Newsûdê hatiye dinê.

Exter Fetahî derheq bi jiyana xwe ya hevpar û nasyariya xwe tevî PDKÎ weha dibêje: “Min di sala 1973’an (1352) jiyana hevpar tevî “Elî Xefûrî” ava kir û berhema jiyana me 7 zarok bûn, ku mixabin bi sedema hejarî û destengiyê, 6 zarokên min nesax ketin û canê xwe ji dest dan, jiber ku hejariyê wûsa pêsîra me girtibû ku me nedikarî em wan bibin bal doxtoran û ji mirinê bifilitînin.

Lê bi xweşî ve kureke min bi navê Şoreş maye û di Wezareta Perwerde ya Herêma Kurdistanê de karsaz e û herweha karê rojnamevaniyê jî dike. Exter dibêje min di sala 1978’an(1357) Partiya Demokrat nas kir, lê sala paştir û di sala1979’an(1358) PDKÎ li Nûdşê meqerê xwe bi eşkere ava kir, wî çaxî me xwe bi meqerê partiyê da nasandin, jiber ku wî çaxî Se’îd Ye’qubî naskirî bi Se’îd Kalkal berpirsê meqerê partiyê bû”.



Exter Fetahî piştî 36 salan jiyana pir ji awareyî ya tevî pêşmergeyek PDKÎ, çavnihêriya xwe ji Partiya xwe weha tîne ziman: “Take çavnihêriya min ev e ku, partiya min, bigehe armancên xwe û ez bikarim careke din vegerim nava xelkê xwe û axa xwe û bi serbilindî temenê mayî derbaz bikim”.

Exter Fetahî di bersiva pirsyara din ya Agirî derheq bi bîreweriya herî xweş a jiyana xwe, dibêje: “rizgarkirina Bajarê Kerkûkê ji destê rejîma Sedam Husên rojeke pir xweş bû ku tu caran ji bîra min naçe.

Jiber ku careke din piştî salên dûr û dirêj, careke din Kurd li Kerkûkê xwedî derketin. Li bîra min e ku Dr. Sadiq Şerefkendî jî pir kêfxweş bû û tenanet teqeya xweşiyê kir”.

Exter Fetahî herweha rojên herî nexweş ên jiyana xwe weha tîne ziman û dibêje: “Di Jiyana min de rojên herî nexweş zêdene, rojên şehîdketina her du rêberên gelê me Dr.Qasimlo û Dr.Şerefkendî pir nexweş bûn û birînek bû ku ket canê tevgera Kurdan û PDKÎ û gelê Kurd li Rojhilatê. Piştî şehîdketina rêberên Kurd, mirina zarokên min birînek pir giran bû ku her dûcarî dibû.

Rojek din ku pir nexweş bû roja kîmiyabarana bajarê Helebçê bû, jiber ku em di rê de bûn û me pir zehmetî dît. Rojeke din şehîdketina bira û kurmetê hevjînê min bûn bi navên “Mihemed Xefûrî” û “Serdar Rezayî”. Rojek din jî ku rojeke tal bû libîr min naçe, şehîdketina Kak Mensûr Fetahî bû”.

Exter Fetahî di dawiyê de rû li jin û keçên Kurdistanê dike ku bi vê gotinê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne: “Daxwaza min ji jinên Kurdistanê ev e ku zarokên xwe bi başî perwerde bikin da ku bikarin pêşeroja gelê xwe ronî bikin.

Herweha daxwazê ji keçên Kurd dikim ku bên û tevlî refên PDKÎ bin û bo rizgariya xwe û gelê xwe bixebitin. Xwe ji xizmeta bi Komara Îslamî re biparêzin da ku rûpelek reş neçe ser dîroka jiyana wan”.



**Rêzdar Exter Fetahî digel kurê xwe rêzdar Şoreş Xefûrî**

# 20’ê Çiriya Paşîn roja cîhanî a pesendkirina mafê zarokan



**Îdrîs Stwet**

20ê Novamber wek roja cîhanî ya pesendkirina mafê zarokan hatiye naskirin û di wê rojê de rêkxistinên NY di kombûnekî giştî de hemiyan deng bi peymanameya mafê zarokan da û niha bûye yek ji pîroztirîn carnameya cîhanî û ji ber ku piraniya welatên cîhanê wajo li ser cîbicîkirina madeyên carnameya cîhanî a mafên zarokan kiriye û ev carnameya han ji 54 madeyan pêkhatiye û heya niha 193 welatên cîhanê ku di NY endamim, peymanameya cîhanî a mafên zarokan wajo kirine.

Armanc li vê peymanameyê eva ye ku zarok bi vî hemû cindîbûna ku heye, bo vê dibe ku di jîngehek baş û geşekirinek berfireh de jiyanê derbaz bike û wek her yek ji kitkitên civakê pêdvî bi mafê man û jiyanek aram heye û pêdivî ye ku em goh bidine bîr û boçûn û xwastikên wan û bi vê mveremê ku tu zarokek nabe bi dijwarî jiyanê derbaz bike.

Tevî vê ku peymanameya han ji aliyê NY ve hatiye pesend kirin û çendîn sale jî bi ser wê peymanameyê de derbaz dibe, lê dîsan jî di zaf welatên cîhanê de û heya hin welatên ku peymanameya mafên zarokan jî wajo kirine, wek welatê Îranê, mafên zarokan tê binpê kirin û tu giringî bi zarok û mafên zarokan nadin.

Komara Îslamê a Îranê di sala 1372an de bûye endamê konvansiyona han û tevî vê jî ku Îranê peymanameya cîhanî a mefên zarokan wajo kiriye, lê bi kiryar Îranê tu madeyên wî konvansiyona mafên zarokan neparastiye û berdewam jî mafên zarokan di wî welatî de tê binpêkirin. Li gor amarên fermî ku nawenda amara Îranê xwe bilav kiriye, nivîsandine ku zaftir ji yek milyon û heftsed hezar zarok di Îranê de kar dikin, lê nawendên parastina mafên zarokan hejmara zarokên kar zaftir ji 3 mîlyon radigehînin ku piraniya wan zarokan ji xwendin û nivîsandin bêparin.diyardeya karkirina zarokan bitaybet di serdemê Komara Îslamî de gihiştiye qasek zaf bilind û sal tevî salê jî qasa zarokên kar di Îranê de zêde dibin û heya niha piraniya zarokên kar tûşî madeyên hişber û HIV ....hewd, bûne û berpirsên wî welatî jî her tim îdiaya çareseriya rewşa zarokan dikin, lê heya niha bo rewşa han pêngavên bi kiryar neavêtine. Evajî di demekê de ye ku ev rejîma han tu bernameyeke baş bû zarokan nine.

Niha piraniya zarokan, bixasmanî zarokên kar û zarokên bê serperest di Îranê de fêrî madeyên hişber bûne û roj di gel rojê jî temenê tûşbon bi madeyên hişber di nava zarokan de zaftir dihête xwarê û li nava zarokên keç jî di wî welatî de, zewcîna zarokên ku temenê



wan di bin 15 salan de ye zaftin ji caran bûye û li gor amarên xwe Îranê, zarokên jinebî (ên hatîne telaqdan) di Îranê de 35 hezar kes in.

Ji kesê weşartî nine ku bilindbûna rêjeya hejarî û zarokên kar di nava civaka Îranê de, beşek berfireh ya wê vedigere bo siyasetên nebaş û nezanistiyane ên desthilatdarên Îranê.

Zarok bixasmanî zarokên kar,kêm endam, bê serperest û zarokên jinebiyan di Îranê de di rewşek nebaş de jiyanê derbaz dikin û di wî welatî de zarok tevî kirîza mafên xwe berbirûn.

Piranira zarokên Îranê û bixasmanî zarokên herêmên bêpar wek Kurdistanê, ji mafên xwe ên wek perwerdeya standard seyran û geştûgozara pêwîst, pêdviyên sereke wek derbazkirina dewrana zarokbûn, bîme, derman, bikaranîna amrazên pêwendiyê, azadiya olî û...hewd bêparin û di Kurdistanê de serbarê vê ku zarok li pêdviyên sereke bêparin, gellek mêjve ye ku hewla vê hindê hatiye dayîn ku pêdviyên taybet ên xwendinê jî ji aliyê xwe dersxanan ve, an jî ji aliyê malbatên wan ve bên dabîn kirin û eva jî bargiraniyek din êxstiye ser milê jiyana xelkê ku mixabin zirarmendê sereke jî her zarok in.

# Kesên desteng goriyên herî sereke yên bûyerên hatinûçûyînê ne

**Kurdistanmedia: Wezîrê Xweşbijîvî (Rifah) ê rejîmê ragehand ku %90 ji goriyên bûyerên rê û banan, xelkê kêmdahat û desteng ên welat in.**

Bi pişikdariya Wezîrê Xweşbijîvî û Wezîrê Bajêrsazî û parek ji rêveber û berpirsyarên rê û banan, bi boneya roja cîhanî ya “Bîranîna goriyên ajotvaniyê” rêûresmek hate lidarxistin.

Di vê rêûresmê de serbarê xistine berbas a zêdebûna bûyerên hatin û çûyînê û goriyên wan bûyeran, Wezîrê Xweşbijîviyê yê rejîmê ragehand ku, %90 ji goriyên bûyerên hatinûçûyînê ên Îranê ji xelkê hejar û kêmdahat pêk tên.
Ligorî gotinên Elî Rebî’î %25 ji wan bûyeran di navbera ajotvanên Matorsiklêtan de diqewimin, û %60 ji ajotvanên wan jî canê xwe ji dest didin.

Li gorî amaran, dema navincî ya gehiştina tîmên hevarhatinê di Îranê de, di rewşa xwe ya herî baş de 12 deqe ye. Lê dema standard a cîhanî 7 deqe hatiye diyarîkirin. Eva di demekê de ye ku li gor gotinên Wezîrê Rê û Banên rejîmê, rêjeya alavên veguhastinê di Îranê de, li gorî 20 salên derbazbûyê, 20 hemberî zêde bûne.

Parek ji sedemên zêdebûna bûyerên hatinûçûyînê di Îranê de, vedigerin bo ser nebûna bingeha baş a rê û banan û ne standarbûna tirumbêl û alavên hatinûçûyînê û herweha, guhnedana hemwelatiyan bi rênimayiyên hatinûçûyînê hatine diyarîkirin.



## Pirtûka “Ferhenga Cuxrafî ya Hewraman”ê hate çap û belavkirin



**Ajansa Kurdpa: Pirtûka “Ferhenga Cuxrafî ya Hewraman”ê ku bi qelema “Mihemed Mehmûdî” hatiye nivîsandin, hate çap û belavkirin.**

Nivîskarê pirtûkê di pirtûka xwe de tekez li ser mijarên weke reh û rîşala Kurdên Hewramî û Goran û herweha hilkevt û taybetmendiyên cuxrafî, mohîtî, civakî, çandî û aborî û herweha çawaniya berhemên cotkarî ên herêma Hewramanê dike.

Dr. Mihemed Mehmûdî yê nivîskarê pirtûkê, xelkê gundê “Dimyo” ya ser bi bajarê Servabad ya Merîwanê ye. Navbirî xwediyê bawerînameya Diktora di rişteya “Cuxrafiya we bernamêrîziyê rûstayî” ji zanîngeha Tehranê ye, û niha di zanîngeha “Peyam Nûr” ya bajarê Sinê waneyan dibêje.

Heya niha gellek mijar, berhemên curbicur ji navbirî di kovarên zanistî ên navxweyî û derve û di konfirans û simînarên navxwe û derveyî welat de hatine çap û belavkirin. Hinek ji wan berheman pêk tên ji ,”Rahnimaya geştyarî ya deverên Kurdakincî ên Îranê” û herweha pirtûka “Kaweyê Asinger” ku ji aliyê Şêrko Bêkes ve hatiyen nivîsandin, bo ser zimanê Farsî wergêran kiriye.

## Piştî heyameke dirêj, li Urmiyê şanoya kurdî hate lîstin!

**Piştî demek dirêj li bajarê Ormiyê yê Rojhilata Kurdistanê, şanoya kurdî hat lîstin. Şanoya bi navê “Bûka Baranê” li salona Şems a bajêr hat lîstin û rastî eleqeya mezin hat kurdan hat.**

Şanoya kurdî ya bi navê “Bûka Baranê”, sê rojan li salona Şems a bajarê Ormiyê yê Rojhilatê Kurdistanê hat lîstin û rastî eleqeya mezin a kurdan û mirovên hunerhez hat.

Ev bûyera çandî, piştî 10 salan li Ormiyê diqewime çimkî ji sala 2005ê ve ti şano û çalakiyeke hunerî ya kurdî li wî bajarê Rojhilatê Kurdistanê nehatibû lidarxistin.

Şanoya “Bûka Baranê”, ji aliyê derhêner, lîstikvan û nivîskarê kurd Resûl Bangîn ve hatiye nivîsandin. Di şanoyê de hunermendên bi navê Şebnem Yûsifî, Sîma Nezerî û Îlham Heyderiyan lîstin.



Resûl Bangîn li bajarê Şino ji dayîk bûye lê li Ormiyê dijî. Bengîn, Serokê Enstîtuya Ehmedê Xanî bû lê enstîtu ji aliyê rêjîma îslamî ve hat girtin.

Naveroka şanoya Bûka Baranê ya Resûl Bangîn wiha ye:

Bûka Baranê, ku ji bo baran bibare xwe dixemilîne, vê carê zivistanê kincên xwe li xwe dike û daxwaza baranê dike. Lê bavê bûz û sermayê dibe asiqê wê û jê re dibêje, eger tu nebî maşûqa min ezê hemû dinyayê bicemidînim û ji nav bibim. Bûka Baranê daxwaziya wî qebûl nake ji ber wê jî bavê bûzê dinyayê dicemidîne, Bûka Baranê jî xwe davêje nav deryayê û dibêje, heta xelk ji dil gazî min nekin ez ji nav avê dernakevim…

## Mêlodîdanerê bajarê Kirmaşanê çû ser dilovaniya xwe

**Nûçegihaniya Kurdpa: Helbestvan û Mêlodîdanerê Kirmaşanî, “Rehîm Mu’înî” li nexweşxaneyeke bajarê Tehranê koça dawiyê kir.**

Li gorî rapora belavbûy, di Nexweşxaneya “Cem” a bajarê Tehranê, “Rehîm Mu’înî” di temenê 87 saliyê de koça dawiyê kir.

Navbirî bi dirêjahiya temenê xwe, mijûlî karê helbestvaniyê bû, û alîgirên helbestên wî û bitaybet helbesta bi navê “Êy Şem’ha bêsûzîd” (Ey mom, bişewitin) zaf bûn.

Mu’înî karê nigarkêşiyê jî dikir, lê bi sebeba dijayetiya malbatê, ev kar nekir, û di meha Xermanana sala 1320 (1941)’an de dest bi çalakiyên siyasî yên xwe kir, û rojnameya “Selehşûranê Xerb”çap kir, û di encamê de jî tûşî hepsê û terikadina wargehê xwe bû. Wî helbestvanî di derbarê Muzîkê de, digel hunermendên binavûdeng, wekî “Elî Tecvîdî, Pervîz Yaheqî û Homayûn Xorem alîkarî kiribû, û stranbêjên naskirî wekî Dilgeş û Merziye jî helbestên wî gotine.

Piştî destkarîkirina hinek ji helbest û stranên Mu’înî Kirmaşanî, kurê wî Husên Mu’înî Kirmaşahî helbest û stranên babê xwe çap kirin, ku pirtûka “Xabê Noşîn” û Razê Xilqet” karên vî çalakvanî ne. Herçend ku



Rehîm Mu’înî Kirmaşanî Kurd bû, û di malbateke kevnar a Kirmaşanî de hatibû dinê, lê ti demekê, karên Edebî û hunerî bi zimanê Kurdî, yan debarê Kurdistanê de belav nekirin.

## Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Carinan yek tênagihêje ku mirov ji bo çi dikenin.
**Dostoyevskî**

Ji bo ku ez negirîm ez bi her tiştî dikenim.
**Beaumarchals**

Mirovan evqasî zehmetî kişandine ku mecbûr mane ken afirandine.
**Nietzscehe**

Mirovê ku nizane bikene, ne ku tenê xayintiyê dike, herweha jiyana wî bi xwe xayintî ye.
**Carlyle**

Mirovê bêhêvî nikare derkeve serê çiyayên rastiyê.
**Nietzsche**

Her tiştê ku dibiriqe ne zêr e.
**Cervantes**

Kirinên xweşikan xweşik in.
**Fielding**

Laşekî xweş ji bo ruhê mirovan wek odeya mêvanan, laşekî nexweş jî weke girtîgehekê ye.
**Bacon**

Çavên herî xweşik, carinan çavên herî derewîn in.
**Victor Hugo**

# Zimanê Kurdî

## Cejna Newrozê

Newroz cejna serê salê û destpêka biharê ye. Her sal di bîst û yekê adarê de tê pîrozkirin.

Jin û mêr, keç û xort, pîr û zarok cilên xwe yên xweşik û rengîn li xwe dikin û derdikevin derve. Her kes li dora agirê Newrozê govend digire.

Di Newroza îsal de ji bo pîrozbahiya cejnê Binefş diçe konsera Şivan Perwer. Lewra Binefş ji stranên wî gelek hez dike.

Baran û hevalên xwe jî diçin seyrangeha Kaniya Spî. Li seyrangehê govend digirin û bi topê dilîzin. Piştî ku firavînê dixwin bermayên xwe berhev dikin û davêjin çopdankê.



### Li hemberî hevokên jêrîn, nîşaneya rast(R) an jî çewt(Ç) deynin.

Newropn, cejna serê salê û destpêka biharê ye. ..............

Newroz, her sal di bîst û pêncê adarê de tê pîrozkirin. ...........

Di Newroza îsal de Binefş diçe konsera Şiva Perwer. ............

Lewra Binefş jî sitranên Şivan Perwer gelekî hez nake. ........

Binefş û hevalên xwe diçin seyrangeha Kaniya Spî. ..............

Piştî ku firavînê dixwin bermavên xwe berhev nakin.



# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

10- Dane quta qutayi, li rêza kara danayi, bo xolamêt axayi. **Rext**

11- Duxkê vizê, çu ber bizê.
- Kur tê ji dûr tê, gava vedireşe xwîn tê. **Gule**

12- Çil taq in, çil bertaq in, çil ode ne, ji çil di
zêde ne.
- Sê taq e, sê bertaq e, sê derge ye, sê hucre ye.
(* Sê cizî yêt Quranê)
- Çil derp e çil derpîç e, çil xolam e çil xecîc e.
- Çil çît in, çil berçît in, çil xidam in, çil xulam in, çil xecîc
in. **Quran**

13- Sindorûka li ser sindorûkê, kilîla di destê
bûkê.
- Ez çume Elkûşka/oda, tax, xani jêrî, min
dît jina li ser mêrî, min gutê dê çi lê key?
Gut: Dê înim nêrî.
- Berek li ser berekê, teyrek dixûnit li dolekê, kuna qûnê li nîvekê.
- Te dibeme lateka asê, di kunê diqutim lûliya dasê. **Distar**

14- Hindî bikenê tijî nabit, hindî bidenê têr nabit. (* aş, meqes)
- Firrfît û firrfît, bo te û babê te dirît.
- Gîskê gorrî, li avê xorrî.
- Tebeka li ser tebekê, kona qunê di nîvekê.
-Çi diken karê ew dihêt xarê.
- Gîskê gurrî, li ser avê/rubarî xorrî.
- Him himo, li ber çemo, ne diz diben, ne
gur dixot. (* Hindek dikene Distar.)
- Hindî dibezit, ji cihê xwe naçit.
- Him hima li ber çema, ne gurg dixwe ne diz
- Sindorîka li ser sondirîkê kilîla di destê bûkê. **Aş**

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



# Agirî

- Rojnameya “Agirî” di van malperên jêrên de bixwînin:
- www.Kurdistanmedia.com
- www.Agirimedia.org
- rojnamaagiri@gmail.com
- www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (266)


## Çavkaniyên hikûmetî: Kurdistan di warê bêkariyê de, di rewşeke metirsîdar de ye

**Kurdistanmedia: Du parêzgehên Kirmaşan û Sine li gora amarên hikûmetî di warê kar de, di asta herî jêr de ne.**

Rojnameya hikûmetî ya “Te’adol” li gora rapora nawenda amaran a rejîmê, manşeta xwe ji bo “rewşa sor a bêkariyê” danî.
Li gora wan serjimêriyan, parêzgeha Kirmaşanê bi rêjeya bêkariyê ya %15.2 piştî parêzgeha Çiharmehal û Bextiyarî di asta duyem a parêzgehên herî bêkar de ye.
Li gora gotina birêveberê giştî ê kar û ewlehiya civakî yê parêzgeha Sine, parêzgeha Sine di warê bêkariyê de, di rêza 27 de ye.
Navbirî herwis ragehand ku: “Nirxa bêkariyê di buhara îsal de li ser bingeha serjimêriyan %9.8 e. Helbet hinek ji karnasan li ser vê baweriyê ne ku nirxa rastîn a bêkariyê di parêzgehê de nêzî %30 e”.
Vî berpirsyarê rejîmê li gora belgeya vegeşîna kar a parêzgeha Sine ragehand: “Di heyama deh salan de, ji sala 1375 heya 1385’an 60 hezar kes ji xelkê parêzgehê koçber bûne”.




## Erebistanê bi qasî 1.3 milyard dolarî bombe ji hêza xwe ya esmanî re kirîn

**Kurdistanmedia: Piştî daxwaziya Erebistanê li ser kirîna alavên nû ên leşkerî ji Amerîkayê, Waşintonê îzna firotina bombeyan, bi qasî 1.3 milyard dolarî da hêza esmanî ya Erebistanê.**



Nûçegihaniya Fransayê eşkere kir ku roja Duşemiyê 16’ê Çiriya Paşîn, biryara firotina bombeyan bi Erebistanê ji aliyê Amerîkayê ve hate derkirin.

Kirîna van bombeyan ji aliyê Erebistanê ve, di demekê de ye ku herêma Rojhilata Navîn, qonaxeke aloz derbaz dike, û dewleta Riyazê di şerekî giran li dijî Husiyan e.
Ajansa alîkariyan a ewlehiya bergirî ya Amerîkayê (DSCA) di daxuyaniyekê de got: “Firotina van bombeyan ji bo ewlehiya di herêmê de ye, û şiyana Erebistanê bo berbirûbûnê niha û di pêşerojê de baştir dike”.

Di dawiya meha Çiriya Pêşîn a îsal de jî Amerîkayê 4 paporên şerker bi qasî 11 milyard dolarî firotibû dewleta Riyazê.
Cur û rêjeya wan bombeyên ku Erebistanê ji Amerîkayê kiriye ew in: 12 hezar bombeyên 200-900 kîloyî, 1500 bombeyên çeperşikên, 6300 bombeyên leyzêrî ji cureyên piyovî 2, û piyovî 3, û herwisa sîstema kontirola bombeyan ji riya setelaytê ve.

## Di Îranê de dellaliya 40 milyon Tûmenî jî peyda bû

**Kurdistanmedia: Di doma peydabûna pîşe û karên derevîn de, “dellaliya bo telaqê” jî peyda bû, ku dahata wê di navbera 5 heya 40 milyon Tûmenî de ye.**

Serokê Îdareya Kodikê ya parêzgeha Tehranê ragehand ku li gora amaran rêjeya telaqê di vê parêzgehê de li çav sala borî %6 zêde kiriye, wate gihaye 18 hezar û 400 telaqan.
Li gora gotina navbirî di nav her sê kesdan de ku jiyana hevpar pêk anîne, yek kes jiyana wan têk diçe.
Ebas Pûryaniş serokê dadgehên giştî û Înqilaba Tehranê, derheq pirsa Telaqê got: Niha pîşe û karekî nû çêbûye, ku



di hemberî wergirtina 5 heya 40 milyon tûmenî de, dellalê telaqê hewl dide ku jiyana wî kesî ji têkçûnê biparêze, û nehêle ew jin û mêr ji hev veqetin.

Di vî warî de Mihemed riza Elîzade, mamostayê zankoyê û parêzer dibêje ku: Hebûna van cure dellalan di hemû dosiyeyên dadwerî de tê dîtin, û tenê girêdayî bi pirsa telaqê ve nîne, lê pirsa girîng di wir de ye ku sedema sereke ya vê pirsê hebûna kêşe û kêmasiyên di nav sîstema dadweriya wî welatî de ne ku rê bi van cure sextekariyan dide.

## Îranê “Têlêgram” û “Îmo” jî xistin ber tîxa sansorê

**Ajansa Kurdpa: Piştî axivtinên hinek ji berpirsyarên payebilind ên Îranî, du pirogramên epilikêşin ên nivşa nû jî hatin fîlterkirin.**




Li gora wan raporên ku belav bûne, di heyama rojên borî de bikarhînerên Îranî du pirogramên telegram û Îmo digel kêşeyan berbirû bûne, û pirogramênm wan li înternetê de hatin daxistin.

Di niha de malpera telegram li înternetê de hatiye daxistin û bikarhînerên wê tenê li ser mobile û yan jî ji riya dijî fîlterê ve dikarin serdana vê pirogramê bikin.

Kempîna navneteweyî ya mafên mirovan ew bertengkirin vegerande ser hişdariyên Spaha Pasdaran û bi piştqahîmiya bi wan raporan ku jê re hatine şandin, ku bi sedema kêşeya li “DNS” a pirograma Îmo, bikarhînerên vê pirogramê bi tu awayî nikarin, mifahê jê bistînin. Hinek ji nûçeyan jî bas ji kêşeyên di nav pirograma “Bee Talk” dikin.

Xamineyî bas ji nifûza dijminan kiribû ku ji aliyê dem û dezgehên nêzîk ji beyta rêberî, wekî nifûza dijminan li cîhana mecazî û şerê nerm hatiye binavkirin.

Piştî dijberiya bi berçav ya dewleta “Tedbîr û Omîd” di gel fîlterkirinê di Îranê de, nawendên ewlehiyê dest kirin bi jikarxistina malperên civakî.

Li gora wan raporên ku hatine belavkirin, piştî ji kar xistina telegramê, rêjeya bikarhînerên vê li Îranê de zêde bûne, û heya niha zêdetir ji 15 milyon carî li google hatiye dabezandin.